Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 32
31'ê Jun 2006
Buha: 150 Tûmen

# agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

Daxuyaniya Komîteya Navendî ya PDK Îranê

## *Bi hinceta 60'emîn salvegera avabûna Komara Kurdistanê*



R. 2-3

Di şêstemîn salvegera avabûna Komara Demokratîk ya Kurdistanê de, gaveke dîrokî ji aliyê PDK Îranê:

# TELEVÎZYONA TÎŞK WEŞANA XWE DÊ DEST PÊ BIKE

Di cejna 2'yê Rêbendanê (22.01.2006)'an, şêstemîn salvegera avabûna Komara Demokratîk ya Kurdistanê de, hevalê hêja û xebatkar, Kekê Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê mizgîniyeke dîrokî da gelê Kurd. Kekê Mistefa Hicrî mizgîniya destpêbûna weşana bi "TEST" a televîzyona **TÎŞK** da raya giştî ya neteweya Kurd. Birêz Mistefa Hicr got: "Qirar bû di roja 2'yê Rêbendanê, 60'mîn salvegera damezrandina Komara Kurdistanê de, televîzyona **TÎŞK** weşana xwe bi "TEST" dest pê bike, lê ji ber hinek pirsgirêkên qanûnî, ev gave paş ket".

Birêz Mistefa Hicrî anî ziman û got ku di meha 2 ya 2006'an weşanên televîzyona **TÎŞK** dê dest pê bike.

Danîna televîzyoneke Kurdî ji aliyê PDK Îranê di 60 saliya avabûna Komara Kurdistanê de gaveke pir girîng û dîrokî tê hesibandin.

Li benda **TÎŞK** TV bin.



Ji bo bidestveanîna armnacên Komara Kurdistanê

Pîroz be bîranîna 60 saliya avabûna Komara Kurdistanê

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê



2'yê Rêbandana 1384 (2705' an ya Kurdî) • 22'yê Janviya 2006

Towards the Fulfillment Objects of the Republic of Kurdistan

January 22, the 60 th. Anniversary of Republic of Kurdistan`s Establishment

Democratic Party of Iranian Kurdistan



**Bîranîna 60 saliya avabûna Komara Kurdistanê li binkeya Deftera Siyasî a PDK Îranê de hat pîroz kirin** R.3

**Bersiva PDK Îranê bi nameya xwendekarên Îranî yên parêzerên aştî û mafên mirovan** R. 6

**Sefera Ehmedînejad bo Sûriyayê û ...**

Ehmedînejadê terorîst sefera welatê hevalbenê xwe Sûriyê kir... R. 6



**ŞAREZAYÎ**

Şarezayî, her çendî ku îro wekî hemdemî, aştî, aramî û hêmindariyê tê bilêvkirin jî ew... R.9



# Daxuyanî Bi hinceta şestemîn salvegera avabûna Komara Kurdistanê

**Hevwelatî yên birêz!**
**Gelê xebatkar yê Kurdistanê!**

2'yê Rêbendana 1384'an ya Rojî hevberî 22'yê Janviya 2006'an ya Zayînî, şestemîn salvegera avabûna dewleta Komara Kurdistanê li bajarê Mehabadê ye. 60 salan berî niha di roja 2'yê Rêbendana 1324'an ya Rojî de bajarê Mehabadê şahidê damezirandina hikûmetekî niştimanî û neteweyî di dîroka tejî bûyer ya xelkê Kurdistanê bû ku her çiqas tenê 11 mehan li ser pêyê xwe sekinî, lê bû çirayê ronahîker yê rêça xebatkarên rêya azadî û rizgariya neteweya Kurd di hemû parçe yên Kurdistanê de. Bi vê boneya pîroz li ser navê Komîteya navîn û giştî endam û alîgirên Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê, avaker û mîratgirê Komara Kurdistanê, em pîrozbahiyên herî germ pêşkêşî civatên xelkê Kurdistanê û azadîxwazên seranserê Îranê û tev hogirên azadî, demokrasî û dadperweriyê di herêma Rojhilata Navîn û cîhanê de dikin.

Avabûna Komara Kurdistanê ku tevî hemû pîvanekê weke bûyera herî girîng ya tejî serfirazî a xebata xelkê Kurdistanê heta dawiya sedsala bîstan tê hesibandin, berhema dehan salan xwe gorîkirin û nîşana hezkirina civatên gelê Kurd ji bo azadî û bidestvegirtina çarenivîs û belgeya hişyarî ya rêberiya nû a tevgera azadîxwaz ya Kurdên Îranê bû ku di Partiya Demokrat ya Kurdistanê bi serokatiya Qazî Mihemedê nemir de xwe vedît. Di rastî da eva nirxandina hûr û jêzanî ya Pêşewa **Qazî Mihemed** û hevalên wî bû ku rê ji bo mifah wergirtin ji rewşa piştî dawî pêhatina şerê duyem yê cîhanî xweş kir hetanî bikarin di parek her çiqas biçûk ya Kurdistanê de hêviyên mêjîn û dîrokî yên civatên gelê Kurd bi destve bînin û yekemîn hikûmeta nûjen ya Kurdî ava bikin.

Rast e Komara Kurdistanê di bingehê de ji bo bidetsveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd hatibû damezrandin. Lê li gorî pîvan û mercên dunyaya pêşketî ya îro jî, hikûmeteke nûjen bû. Rêberên vê Komarê û li serveyî hemûyan **Pêşewayê Şehîd** bi awayekî kûr û berfireh ji wate û hewcehiyên civakekî nûjen û pêşverû fêm kiribûn. Heke em lênêrînekê bi ser dîroka dûr û dirêj ya xebata xelkê Kurdistanê bidin, çend nimûne û mînakên tejî serbilindî ji bidestvegirtina desthilatê di parçeyên cuda cuda yên Kurdistanê de tên xuya kirin. Lê xasmaniya berçav ya Komara Kurdistanê li vir de ye ku yekemîn desthilata Kurdî ye ku bi kiryar ji bo cîgirkirina demokrasiyê, desthilata gel û avakirina dezgeh û saziyên civaka sivîl(medenî) gav avêtiye. Bi serbilindî ve em dikarin bibêjin ew demokrasiya ku di wê heyama kurt ya temenê dewleta Komara Kurdistanê de hatibû cîgir kirin, heta niha jî di kêm civakên Rojhilata Navîn de nimûna vê tê xuya kirin.

Komara Kurdistanê hikûmeteke neteweyî bû, lê asoya dîtina vê gelek berfirehtir ji vê çendê bû ku tenê ji bo bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd bixebite. Vê Komarê û partiya avakerê wê ji bo pêşxistina civakê di hemû warên cur bi cur yên aborî, civakî û çandî de bername hebû û çêtirkirina jiyana tex û qata jar, xizan û destkurt di refa pêşîn ya armancên xwe de danîbû. Her çiqas Komara Kurdistanê hikûmetekî herêmî û lokalî bû, lê qet hevpeywendî tevî gelên din yên Îranê li berçav bizir nebû û li gor şiyan û karîna xwe ji bo qahîmkirina têkiliyên biratî û hevxebatî tevî gelên din yên Îranê û hêzên wan



yên welatparêz di cehd û hewildanê de bû. Pêkanîna Eniya Hevgirtî bi parek ji hêzên siyasî yên wê demê ya Îranê re û nemaze girêdana peymana du alî tevî Hikûmeta Niştimanî ya Azerbaycanê belge û nîşana ne înkar kirina vê îdeyê ye. Bi giştî desthilatdariya Komara Kurdistanê tenê hikûmeta beşek ji Kurdistana Îranê bû. Lê him rêberiya Partiya Demokrat û Komarê ew hikûmet ya hemû neteweya Kurd li Îranê û parçên din yên Kurdistanê dizanîn û him civatên gelê Kurd li hemû cihên Kurdistanê bi hêviyên mezin mêzeyî vê Komara sava dikirin.

Em hemû dizanin ku ji bo rê û resma avabûna Komara Kurdistanê hin nûner ji Kurdên parên din yên Kurdistanê jî hatibûn vexwendin û şahidê ji dayîkbûna yekemîn hikûmeta komarî ya dîroka neteweya xwe bûn. Lê berî avabûna komarê jî, ew pêşwaziya germ ya ku bi hatina Barzaniyan û Efserên azadîxwaz yên Kurd ên Arteşa Îraqê hate kirin, xuyakerê ew riha neteweyî bû ku bi ser bîr û ramanên rêberiya tevgera Kurd di wî parçeyên Kurdistanê de zal bû. Li hember de jî ew xizmetên mezin ku Kurdên beşên din yên Kurdistanê di hemû warên hînkirin, çandî û leşkerî de bi Komara Kurdistanê kirin, nîşana vê çendê bû ku hemûyan ew Komare bi ya xwe dizanîn û bi hêvîdarî ji bo pêşerojeke gelek geş û ron dinêrîn. Di vê navberê de nahê kirin ku bi xasmanî qala roleka mezin û jêhatî ku xebatkarên Barzanî bi serokatiya rêberê navdar yê Kurd Mele Mistefa Barzanî di parastina Komara Kurdistanê û bidestxistiyên vê de bi stû girtibû, nehê kirin. Ya rast eva ye ku Barzaniyan û Efserên azadîxwaz yên Kurdistana Îraqê ku roleke girîng di elimandin û prewerdekirina hêza Pêşmergên komarê de lîstin, beşa herî ser û ber ya Hêza Pêşmergên Kurdistanê bû û her di vê demê de jî eva ku di şiyan û karîna wan de bû di xizmeta Komara Kurdistanê de bi kar anîbûn. Lewra jî bû ku rêberiya komarê kar û xebatên herî girîng bi wan re disipart û ne tenê wek hêzeke alîkariyê, belkî bi parek bibandor ji kadroyên parastina hikûmeta Kurdistanê dihatin hesibandin. Bê sedem nebû ku tenê ji wan çend dereceyên Generaliyê ku di Komara Kurdistanê de hatin bexşandin, yek ji wan pêşkêş bi Mele Mistefa Barzanî hate kirin.

Temenê Komara Kurdistanê kurt, lê tejî destkevt û serfirazî bû. Bê guman destkevta herî girîng ya Komarê eva bû ku gelê Kurd di parek ji welatê xwe de çarevivîsa xwe destve girt û hikûmeteke gelî û demokratîk ava kir. Cuda ji vê çendê hin bidestxistiyên wekî pêşdebirina ziman, wêje û çanda Kurdî, pêkanîna hêzekî ser û ber ya çekdar û peyda kirina navê pîroz yê Pêşmerge, pişikdarî kirina jinan di jiyana siyasî ya civaka Kurdewarî de û pêkanîna Yekitiyên Jinan û Ciwanan û bi giştî hewl û cehda pêşdeçûna zanîn û hişyarî ya siyasî di civaka Kurdistanê de, ji xizmetên xuya yên hikûmeta Kurdistanê ne.

**Hevwelatî yên hêja!**

Mixabin tenê 11 mehan piştî 2'yê Rêbendana 1324(1945)'an, bi pîlan û kompiloyeke hevbeş ya Împiryalîzm û kevnarperweriyê, Komara Kurdistanê hilweşiya û wezîfa biçîanîna erk û ehdên vê ji bo nifşa piştre bicih hêla. Li ser sedemên hilweşiyana Komara Kurdistanê gelek tişt hatiye gotin û nivîsandin, zaf caran cehd û bizav hatiye kirin berpirsiyariya têkçûna komarê li stûyê piştevanê derveyî yê komarê, yanî Yekîtiya Soviyeta berê were xistin. Lê bi baweriya me eva sadekirina pirsê û revîn di bin

berpirsiyariyê ye. Tevî vê çendê guman nahê kirin ku hem piştgîriya Hikûmeta Soviyetê ji Hikûmeta Kurdistanê, di avakirin û pêşdebirina komarê de bibandor bûye û him tenê hêlana vê û lihevkirin bi dewleta vê demê ya Îranê re li ser îmtiyaza petrola Bakûrê Îranê bandor li ser hilweşiyana Komara Kurdistanê hebûye, em bawer in him avakirina komarê di pileya yekemîn de berhema daxwaza rêberiya tevgera Kurd bûye û him beşa bingehîn ya berpirsiyariya herifîna vê dikeve ser milê rêberiya Komara Kurdistanê û Partiya Demokrat ya Kurdistanê. Renge em bikarin sedemên herî girîng yên hiloşîna Komara Kurdistanê dixalên jêrîn de kurt bikin:

Nebûna hêzekî bibandor, tesîrker û xwedî şiyan ya çekdar ku bikare li hember êrîşa Arteşa Îranê raweste û parêzvaniyê ji komarê bike, nebûna bingeheke xurt û bihêz ya aborî û malî, qahîm nebûna Eniya hundir û hebûna hinek hêz û eşîran ku heta li serdemê desthilata komarê jî de peywendî bi desthilata navendî re hebûn, bertengbûna melbenda nifûza hikûmeta Kurdistanê û pitir ji vê jî berhev nekirina heta vê parê jî ku di bin zêrevaniya komarê de bû, hiloşîna li nişkêre û bê berxwedan ya hevalbenda tenê û nêzîk ya komarê, wate Hikûmeta Nîştimanî ya Azerbaycanê, jarî û bê şiyan bûna Eniya Hevgirtî ya hêzên siyasî yên Îranê û li serveyî hemûyan Partiya Tûde(Komonîst) ku karîna tu piştgîriyekê ji du hikûmetên Kurdistaê û Azerbaycanê nebûn û serbarê hemû vana jî hitbar bi xwe nebûna rêberiya komarê bû. Hekene her wekî rêberê şehîd **Dr. Qasimlo** di pirtûka **çil sal xebat di rêya azadiyê de** bas kiriye, berxwedaniya çend mehî ya Barzaniyan da xuya kirin ku îmkana berxwedaniyê hebû û desthilata Paşatiyê ne ew desthilat bû ku bikare bi hêsanî li hember vê berxwedaniyê bisekine û têk bişkîne.

Hewceye bihê gotin ku ev şiroveye bi tu awayekê ji bo kêmgirtina rolê rêberên komarê nine û tenê ji ber vê çendê ye ku rêvîngên rêya komarê û berî hemûyan jî PDK Îranê ceribînan lê bigirin û di pêşerojê de pitir bi hêza xwe piştrast bibin.

Bi her halê heyî Komara Kurdistanê hilweşiya. Lê berevajî nêrîn, xwezî û hêviyên dijminên azadiyê, bi herifîna komarê kela bawer û viyana rêvîngên rêya azadiyê ne hilweşiya. Armancên ku Komara Kurdistanê ji bo wan hatibû avakirin, di dilê rêvîngên rêbaza komarê de zindî man û di hemû parçeyên Kurdistanê ji bo wan xebat hate meşandin û xwîn jî rijandin. Ewa ku îro di Kurdistana Îraqê de bûye sebeba rêzgirtin û pesna tev rêvîngên rêya azadî, heq û dadperweriyê bo aliyê xwe rakişandiye, di rastî de kemiladina wezîfên nîvmayî yên Komara Kurdistanê ye, armanc her armancên Komara Kurdistanê ne, dirûşm kêm û zêde her dirûşmên vê komarê ne û tenê li gor rewşa serdem hin guhartin bi ser de hatiye û heta ala wê jî bi guhertinên kêm (rakirina armê û danîna rojê) her ew ala ye ku di Komara Kurdistanê de hatibû hildan.

**Xebatkarên rêya azadîyê!**

Cihê kul û keserê ye ku şêst salan piştî avabûna Komara Kurdistanê rejîmek hikûmetê bi ser malbenda desthilata komarê û hemû wan parên Kurdistanê û seranserî axa Îranê dike ku ne tenê gelîtir, mirovîtir û pêşkevtîtir ji rejîma paşatiyê ya dewrana komarê nine, belkî gelek ji wê hikûmetê paremayî û heta tevî rewşa vî serdemî nenas û biyanî ye. Li hember wê de cihê şerbilindiyê ye ku xelkê Kurdistana Îranê û Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê gelek pitir ji serdemê Komara Kurdistanê hez dike bi armancên komarê bigihîjin û di vê rêyê de bo her cure xwe gorîkirinekê amade ne. Her di vê demê de ew tevî pêşkevtina civaka mirovahiyê pêşve çûne, tevî rewşa serdem nasyar in û parek ji cehd û bizavên mirovahiya pêşkevtî ji bo cîgirkirina aştî, azadî, demokrasî, mafê mirovan û wekhevî ya civakî ne.

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê bi rêbaza avakerên partiyê û komarê û li serveyî hemûyan **Pêşewa Qazî Mihemed** biehd û bisoz e. Cehda cîgirkirina demokrasî û bidestveanîna mafê neteweyî wekî du stûnên bingehîn yên armancên komarê îro pitir ji her demekê ji bo Partiya Demokrat û ji wê jî berfirehtir ji xelkê Kurdistanê re armanc in, mîna serdemê komarê, partiya me di cehda xebata hevbeş û têkiliyên dostîniyê tevî hêzên siyasî yên seranserî Îranê de ye û bi xasmanî girîngî û bihagiraniyeke zêdetir ji bo hevpeywendî tevî wan hêzan dide ku nûnerayetiya gelên zulmlêkirî yên Îranê dikin. Partiya me xwe li hember qahîm û xurtkirina Eniya navxwe û çêkirina pira pêwendî û alîkarî tevî hêzên siyasî yên çepera tekoşîna azadîxwaz ya Kurdên Îranê xwedî ehd dizane û derheq parçeyên din yên Kurdistanê de jî Partiya Demokrat şanaziyê dike ku têkiliyeke baş tevî hêzên siyasî yên pişikdar di tevgera Kurdan di tev parên Kurdistanê de heye û qet jî ne veşartiye ku Kurdên Îranê û Kurdistana Îranê bi beşek ji Kurd û Kurdistanê dizane û hemû demekê hazir bûye û amade ye ji bo xizmet bi pêşkevtina tevgera Kurd di hemû beşeke Kurdistanê de her hevkariyek ji dest bihê pêşkêş bike û her gorîkirinek hewce be, kêmasiyê neke. Bi hinceta salvegera avabûna komara Kurdistanê em tevî canê paqij yên rêberên Komara Kurdistanê û hemû şehîdên Partiyê nemaze serwerên Şehîd **Qazî**, **Qasimlo** û **Şerefkendî** û her wisan tevî civatên xelkê Kurdistanê peymana xwe nû dikin ku heya serkevtina yekcarî û bidestve hatina hêviyên Komara Kurdistanê ala xebatê li erdê nedin û di vê rêyê de ji tu cehd, xebat û xwe gorîkirinekê kêmasiyê nekin.

**Silav ji bîranîna avakirina Komara Kurdistanê**
**Silav ji canê paqij yên avakerên komarê û li serveyî hemûyan Pêşeva Qazî Mihened**
**Payedar bin hêviyên pîroz yên Komara Kurdistanê**
**Bihiloşe dîktatorî û kevneperestî**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Komîteya Navendî**
**2' yê Rêbendana 1384'an ya Rojî**
**22'yê Janviya 2006'an ya Zayînî**

## Bîranîna 60 saliya avabûna Komara Kurdistanê li binkeya Deftera Siyasî a PDK Îranê de hat pîroz kirin



Roja 2’yê Rêbendana 1384 (22.01.2006)’an, rê û resmeke hêja û berfireh li binkeya Deftera Siyasî li Koyê bo yad û rêzgirtin ji 60 saliya avabûna Komara Kurdistanê û nîşandana soz û emeknasiyê bi armancên wê dewleta Kurdî hate lidarxistin. Di vê rê û resmê de ku hemû endamên rêveberiya partiyê û nûnerên hejmarek ji dezgeh û saziyên Hikûmeta Herêmê li bajarê Koyê û hejmarek zor ji kadro û Pêşmergeyên Partiyê û malbatên wan pişikdar bûn li destpêkê de, bi nîşandana kurte fîlmekê li ser dîroka Komara Kurdistanê di warên cuda cuda de û sirûda neteweyî ya **Ey Reqîb** hate dest pê kirin. Piştre Peyama Deftera Siyasî ji aliyê Sekreterê Giştî yê partiyê, birêz Mistefa Hicrî hate pêşkêş kirin.

Piştre peyemên Yekîtiya Jinên Demokrat a Kurdistana Îranê, Yekîtiya Xwendekarên Demokrat ya Kurdistana Îranê, Yekîtiya Ciwanên Demokrat ya Kurdistana Îranê hatin pêşkêş kirin.

Hêjayî gotinê ye ku rê û resm bi çend parçe helbest, sirûd û stranan bi dawî hat.

# Deqa axavtina birêz kak Mistefa Hicrî di rê û resma 60’mîn salvegera avabûna Komara Kurdistanê de

**Xelkê bi şan û şeref yê Kurdistanê!**
**Kadro û Pêşmerge, Endam û tagirên PDK Îranê!**
**Mêhvanên hêja yên pişikdar**

**di rê û resma bîranîna 60’mîn salvegera avakirina “dewleta Komara Kurdistanê”!**
**Silavên serbestî û azadiyê!**

Her wekî hûn gişt aliyek agehdarin, şêst salan berî niha di rojeke wekî îro de 2’ê Rêbendana 1324(1945)’an, Dewleta Komara Kurdistanê li bajarê Mehabadê hate avakirin. Bi vê hincetê ez pîrozbahiyên germ yên xwe û rêberiya partiyê pêşkêşî tev gelê Kurd li her derekê bin dikim. Silav û pîrozbahiyên taybetî ji bajarê Mehaadê, bajarê Komarê û bajarê Qazî!

Piştî destpêkirina şerê duyemîn yê cîhanî di sala 1320(1951)’an pêde, leşkerê Sor ji Bakûr û hêza Birîtaniya û Amerîkayê jî ji Başûr ve dest bi ser welatê Îranê de girtin û rejîma Riza Şah bi bê berxwedanî hate hilweşandin.

Bi ji navçûna desthilata zordar ya Riza Şah hinek azadî di Îranê de peyda bûn û rêxistinên siyasî geşe kirin. Di vê zirûfê de ku başûrê Kurdistana Îranê ketibû bin desthilata Amerîka û Birîtaniyayê, û beşa Bakur jî heya bajarê Urmiyê di bin desthilata hêza Sor de bû, herêma Mehabadê herêmeke azad bû û çi yek ji van desthilatan tê de akincî nebûn.

Dirêjiya vê rewşê û bûna azadiyên demokratîk di Îranê de û herwiha têkçûna Almana Nazî û faşîzmê rewş ji bo avakirina PDK Îranê weke partiyeke pêşeng û bersîvderê vê rewşa nû rêxist. PDK Îranê di 25’ê Gelawêja 1324’an ya Rojî de hate avakirin û di 2’ê Rêbendana hemen salê de, Dewleta Komara Kurdistanê li bajarê Mehabadê pêk anî.

Yek ji taybetmendiyên Komara Kurdistanê eva bû ku rêberiyeke rêxistî weke PDK Îranê hebû. Di dîroka neteweya Kurd de yekemîn car bû ku partiyeke pêşeng û demokrat desthilata siyasî a herêmekê bi awayê Komarî bi wateya desthilata xelkê bi destve girt. Komara Kurdistanê weke hikûmeteke pêşkevtî li ser bingeha demokrasî, mafê neteweyî û dadmendiyê hate avakirin.

Hikûmeteke nûjen bi vê wateyê ku ger di tevgerên pêştir de, desthilat di destê serok eşîr, mêrekî olî, yan jî xwedan milkekê de bûye, di vê hikûmetê de partiyeke pêşverû ku di serî de Serkomarê bîrmend û jêhatî yê gel Pêşewayê nemir Qazî Mihemed rawestiyabû, ev hikûmet rêve dibir.



Yek ji cudahiyên van du terze desthilatane eve ye ku tevgerên rabihorî zaf caran bi awayekê bûye ku bilez geşe kiriye û herêmeke pan û berfireh xistiye jêr desthilata xwe lê bi jinavçûna serok hemû tiştek bi dawî bûye û desthilat wekî xwe nemaye, lê bi hiloşîna Komara Kurdistanê û bi darvekirina Serok Komarê wê û qehremanên din yên wê Komarê, ne tenê bizav her nerawesta û têkneçû, belkî komar û buhagiraniyên bilind û mirovî yên wê bûne remza berxwedaniyê û egera rêya pir evraz û nişîv ên xebatê ji bo bidestveanîna ducarkiya wan destkevtên buhagiran ku komarê dabûne xelkê Kurdistanê.

Nîşaneyeke din a nûjen bûna komarê enternasiyonal bûna komarê bû. Berevajî piraniya desthilatên derbasbûyî ên tevgera Kurd, vê hikûmetê ne tenê her kêmaniyên neteweyî û olî nediçewisandin û eciz nedikirin, belkî ew di heyamê temenê komarê de bibûne xwediyê wan hemû mafan ku Kurdan hebûn. Komar piştevanê zor bi hêz yê Cihû, Ermenî û wan Turkan bû ku li jêr desthilata komarê de dijiyan. Ji bilî vê yekê peywendiyeke baş jî bi Turkên cîran bi xasmanî bi Hikûmeta Neteweyî a Azerbaycanê re damezirand.

Hebûna azadiyê bi gişt terzên xwe di heyamê kurt yê komarê de ji xalên bingehîn û sereke yên nûjen bûna komarê ye. Arçî rozwêltê Amerîkayî ku li serdemê komarê bo serdan çû bû Mehabadê dibêje:” Tiştek bo mirov ciyê heyrîmanê ye, ew jî ew rewş û hewayê azad e ku di Mehabadê de heye”.

Pêkanîna Yekîtiya Jinan û Yekîtiya Ciwanan ji pêkhateya eşîretî a nifûsa Kurdistanê di çaxê komarê de ku pitir ji 95 ji sedê ji akinciyên wê nexwenderwar bûn û zaf bernamên din nîşaneya bîra nû û hewildan bo pêgehandina xelkê bona gihîştin bi pêşerojeke geştir û pir ji bextewerî bû. Her lewma ye em dibînin Kurdên beşên dinê jî rû dikene komarê û bi dil ve xizmetê bi komarê dikin. Mînaka baş a vê hevkariyê, Barzanî ne, ew hêza herî bi ser û ber a Kurdistanê bûn ku heya rojên dawiyê li qada Seqizê ku yek ji eniyên girîng ên hêza Pêşmerge bi dijî hêza rejîma Şa bû û qehremantiyeke zaf ji xwe nîşan dan, diyare komarê jî ne tenê ew bi mêvan nedidanîn , belkî ew bi xwedan mal dizanîn.

**Xûşk û birayên hêja!**

Heke piştî şêst salan yad û bîranîna komarê ji aliyê xelkê Kurd li Kurdistana Îranê û beşên din bilind tê ragirtin, ew pirensîpên pêşkevtî û serdemiyane bûn ku komar li ser hate avakirin ku ya herî girîng mafê neteweyî yê gelê Kurd bû bi awayê Otonomî. Di vê cure desthilatdariyê de gelê Kurd û neteweyên din ên Îranî dê desthilata rêvebirina herêmên akincîbûna xwe hebin û li rêvebirina Îranê jî bi giştî pêka nifûsa xwe û li gor qanûnê beşdar dibin, ev daxwaziye bi dehan salan piştî avakirina komarê jî her daxwaza sereke a tevgerên Kurdan li beşên cur bi cur pêk dianî û heta PDK Îranê jî heya kongireya 13’mîn a xwe ku di meha 6’ê a sala 2004’an de hate lidarxistin dirûşma wê ya sereke Demokrasî bo Îranê û Otonomî bo Kurdistanê bû, di vê kongireyê de piştî berhevdana guherînên cîhanê û herêmê, Federalîzm kire dirûşma xwe.

Bi kurtî hemû ew buhagiraniyên wekî demokratîzasyon, azadî, mafên mirovan û dadperwerî ku di vê serdemê de rûmeta cîhanê guheriye û wekî piroseyekê bilez berev vê yekê diçe ku cîhaneke nû biafirîne, 60 salan berî niha di Komara Kurdistanê de tên dîtin.

Renge li vir de ev pirsiyare derkeve holê ku komar serbarê vê ku xwediyê wan hemû buhagiraniyên mirovî û pêşkevtî bû , çima hilweşiya? Bersiv bo vê pirsiyarê zor in, lê renge yên herî girîng berhevdan li asta navdewletî, herêmî û navxweyî li serdemê komarê de be ku li vir de em dê bi kurtî qala wan bikin:

Piştî bi dawî hatina şerê duyemîn yê cîhanî em di asta navneteweyî de berbirûyê sîstemekê bûn ku dixwest di çarçoveya du mijarên zal, wate Sosyalîzm û Sermayedariyê de qewareyekê pêk bîne ku leyîzên siyasî û hemû bizavên cîhanê di çarçoveya wan du gotarane de bihên pênase kirin. Yek ji taybetmendiyên wan du

mijarane eva bû ku hemû hewl û bizavên ku bo alîkarî kirin bi bizavên rizgarîxwaz dihate kirin bo vê çendê bûn ku cure hevsengiyek di navbera van du mijarane de pêk bihê. Ekterên bi bandor li ser vê hevsengiyê hazir nebûn ku bi tu terzekê nirxê bo buhayên weke azadî û demokrasiyê bidin. Wate mifah wergirtin ji azadî û demokrasiyê pêka her yek ji wan aliyan tenê berteng kirina qada çalakî û berjewendiyên aliyê din bû. Li vir de azadî û demokrasî tenê di asta dirûşm de hayderê bizav û



tevgeran bûn û di asta bikiriyar de tu hêzek amade nebû ku nirxekê bo cî bi cî kirina wan buhayane bidet. Di hemen demê de sîstema navneteweyî aligirî ji qewareyekê dikir ku bi terzek rûyekî bi navê dewletê nûneratiya hemû kar û baran dikir. Ew Ektere di cîhana sêyem de bi tu terzekê bersivderê rewş û zirûfa wan civakane nebû û azadî û demokrasî her bi pênaseya dewletê ve rêz jê dihate girtin.

Bi vî terzî em dibînin ku rewş û zirûfa wê demê bo dîtingeha komarê derheq bi sîstema cîhanî teba nebû û komarê tevî sîstema navneteweyî dozeke kakilane hebû. Azadî û demokrasî di wê serdemê de tenê di çarçoveya hevalbendî û herwiha bo dijberî kirin di hember aliyên berjewendîxwaz de wateya xwe peyda dikir. Wate hevalbendên Sermayedar xwe bi azadîxwaz dihesibandin heya demekê ku dikarîn pîvanekê ji cemsera Sosyalîst werbigrin û di hember de alîgirên Sosyalîst heya demekê piştevanî ji gelên çewisandî dikir ku qada çelengî û berjewendiyên Sermayedarî dikete cihê tirsê û berjewendiyên Yekîtiya Soviyetê misoger dibûn.

Di asta herêmî de komar di erdnigariyekê de serî hilda ku bi Rojhilata Navîn dihate pênase kirin. Ev herême ku piştî şerê yekem yê cîhanî qeware û pêkhateya wê li ser bingeha dewlet - netewe hatibû çêkirin, piştî şerê duyem yê cîhanî ev pêvajoye domand û çarçoveya sîstema navneteweyî piştî şer hemû leyîzên siyasî bi ji berçav girtina wan dewletane birêve diçû û dewletên Rojhihata Navîn karî bûn xwe bi tevahî biselimînin û roj bi roj dirêjî bi desthilata zorxwazane ya xwe bidin. Her yek ji wan dewletane xwe bi aliyên Rojava yan Yekîtiya Soviyetê ve girê didan û bi çêkirina vê terze hevalbendiyê hemû cehd û xebitînek bo azadî û demokrasiyê serkut dikirin. Îran, Sûriye, Turkiye û Îraq nimûneya herî berçav a wan dewletane ne.

Li derveyî vê herêmê de jî mijarek hebû ku pêdeçûnê li ser vê rewş û zirûfê bike û yan biherifîne. Bi kurtî em dikarin bibêjin ku azadî û demokrasî di Rojhilata Navîn de bi giştî nenaskirî bûn.

Dema ku em têne ser behsa hundirîn, di vir de merema me ew dewletane ne ku Kurdistan bi ser wan de hatiye pervekirin. Qewareya siyasî a wan welatane tenê çavkanî li pişkek ji pêkhateya nifûsa wan welatane bi xwe ve digirt, bo nimûne Turkiye sembola Turk, Îran sembola Fars û Îraq sembola Ereb bûn.

Pêkhateya wan welatane di çarçoveyek yekdeng de dizivirî û tenê bersivderê berjewendî û hewcehiyên pişkek ji civakê bû û bi tu terzekê qewareya siyasî ya wan welatane nûneratiya gişt aliyên nava civakê nebû di wan welatane de diyalog û piloralîzm tu buha û nirxek nebû. Di qewareyekê de ku Ereb, Fars û Turk hemû tiştek bi navê yekgirtina axa dewletên xwe ve tepeser dikir, azadî û demokrasî tenê di cihekî biçûk weke Kurdistanê de çawa dikarî dengê xwe bilind bike?

Piraniya wan heger û paremayî a gelê Kurd di wê serdemê de ku bi xwe hewcehî bi behs û berhevdaneke kûr û berfireh heye, destê xwe dane hev û Komara Kurdistanê hilweşandin. Di rastî de êrîşa leşkerî a Şah di Sermaweza sala 1325(1946)'an de bo ser Mehabadê û hiloşandina komarê bi xwe encama wê rewş û zirûfa siyasî a navxweyî û derveyî bû ku dûr ji viyana gelê Kurd û xelkê Mehabadê pêk hatibû û bi dijî berdewam bûna komarê pêşve diçû.

Serbarê vê çendê jî, heke avabûna Komara Kurdistanê hêviyeke mezin bi gelê Kurd di Kurdistana Îranê û hemû beşên din yên Kurdistanê bexşî û nasnameya Kurdî zindî kir, hiloşîna vê komarê herçend bo heyamekê xelk veciniqand û ew ji xema ji destçûna komara sava ya wan û piraniya kesayetiyên navdar yên komarê û li serveyî hemûyan Pêşewa veciniqand, lê partiya avaker ya komarê Partiya Demokrat ya Kurdistanê bi çok de nehat û di heyamê şeş deh salan de, di nava dehan asteng û girêpêçkên dujmin û neyarên xwe de bi gorî kirina hezaran qurbaniyên din ji xortên herî baş yên xwe, herwisan serbilind di hember dîrok û gelê xwe de bisekine û cehd û tekoşînê bike ku careke din Komareke Federal bo gelê Kurd ku evîndarê azadiyê ye bi hevdengiya hemî hêz û aliyên resen yên Kurd di Kurdistana Îranê de li ser buha û pirensîpên Komara Kurdistanê pêk bîne.

**Hevwelatî yên rêzdar!**

Pêvajoya bûyer û guhertinan li avabûna komarê ve heya niha di Îranê û herêmê de ber bi aqarên cuda ve çûne , heke li Îraqa cîranê Îranê desthilata Bees hatiye hiloşandin û di vir de xûşk û birayên me yên Kurd bi pişkek ji mafên neteweyî yên xwe di sîstema Federalî de şad bûn û di hikûmetên din yên herêmê de jî weke Turkiyê valahiyek ber bi rûyê azadiyan û bi taybetî mafê Kurd hatiye vekirin, di welatê me Îranê de desthilata girûpeke paremayî ku Ol kirine amrazek bo berjewendiyên xwe û navê vê kirine Komara Îslamî a Îranê, cihê rejîma hov a Paşatiyê girtiye û welat ber bi dewranên berê ve zivirandiye, di vê hikûmetê de ku berevajî navê wê ne komarî ye û ne jî pêwendî bi xelkê Îranê ve heye, tu behsek bi navê azadî, demokrasî û mafê neteweyî di holê de nine. Ew ne tenê tu mafekê bo xelkê Îranê bi heq nizanin, belkî behsa ji nav birina neteweyek weke Îsraîl li ser rûyê erdê dikin, piştevaniyê ji terorîzmê dikin û dijî aştî û hêmindariyê di herêmê de ne. Em di vê roja dîrokî de careke din dubare dikin ku gelê Kurd li Kurdistana Îranê û partia avaker ya Komara Kurdistanê di eniya dijî tertorê de ne, alîgirê aştî û bi hevre jiyana serdem tevî cîranên xwe û pabend bi hemû buhayên mirovî ne ku Rêxistina Neteweyên



Yekbûyî bawerî pê heye.

Em li ser vê baweriyê ne ku hevgirtina hêzên demokrat yên hemû neteweyên Îranê û Kurdistanê li dijî Îranê di vê rewş û zirûfê de erkekî bilez a hemû Îraniyeke welatparêzê vêzar ji desthilata hakim bi ser vî welatî de ye, bo vê meremê jî em li pêşiya her terze hevkariyekê ne û pêk hatina Kongireya Neteweyên Îrana Federal ku parek ji hêza neteweyên Îranê weke Ereb, Belûç, Turkmem û Kurd li dora xwe kom dike, hemû nîşana wan alîkariyan in.

Li bîranîna 60'mîn salvegera avabûna Komara Kurdistanê de em silavan dişînin bo canê paqij yê Pêşewayê nemir Qazî Mihemedê Serokê komar û hemû ew xortên bi emek ku li kêleka wî û di rêya komarê de canê xwe bi serbilindî ve bexşîne.

Hêja û pîroz be bîranîna Komara Kurdistanê

Serkevtin bo gelê Kurd û hemû gelên bindest yên Îranê

# Sefera Ehmedînejad bo Sûriyayê û ...

**Selîm Zencîrî**

Di rewş û zirûfeke hesas û dijwar de ku zext û givaşên Rojava bo ser Îran û Sûriyayê xurt û ji her demekê Pêtir bûne, **Mehmûd Ehmedînejed**, Serok Komarê terorîst yê komara Îslamî ji aliyê **Beşar Esed**, Serok Komarê Sûriyayê bi Fermî hate vexwendin û roja pencşemî 19.01.2006'an



gihîşte Demişq(şam) a serbajara wî welatî. Givaşên cîhanî, pirsên siyasî, rewşa deverê û Rojhilata Navîn û hevdîtina bi rêxistinên terorîstî, mijarên bingehîn û girîng yên vê sefera du rojî bûn.

Her du rejîmên tepeserkar û dijî aştî û azadî yên Îran û Sûriyayê xwedî Peywendîyekî kevnar in û Peywendiyên wan jî li çaxê destpê kirina şerê Îran û Îraqê de bihêztir bû û Sûriya li cihê piştevanî kirin ji welatek Erebî aliyê Îranê girt. çunku wê demê serokatiya Partiya Bees a Sûriyayê di destê şîên Elawî de bû û rikeberî û dijatiyek kevnar di gel rejîma Bees a Îraqê de hebûn û nemaze Sûriya amade bû ku boriyên nefta Îraqê ku ji Sûriyayê ve derbas dibû' qût bike. Lê niha di têkilî û peywendiyên derveyî yên xwe de rewşek wekhev hene û di van salên dawiyê de jî her du welat ji aliyê Amerîka ve ketine bin zext û givaşê ve û her du rejîm jî bi gefek mezin bo ser aştî û hêminahiya Rojhilata Navîn, maytêkirin di kar û barên Îraqê û Piştevanî kirin ji terorîzm û girûpên terorîstî hatine nasandin.

Tê çavnihêrî kirin ku di pêşerojeke nêzîk de dosiya Komara Îslamî bi sebeba xebat ji bo bidesveanîna çekên Etomî bigihîje konseya Ewlekariya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî û herwiha rejîma Sûriyayê ji bi dest hebûn di terora Serokwezîrê berê yê Libnanê, **Refîq Herîrî**, bihêne sizadan û bikevine ber hisar û dorpêç kirinên navneteweyî.

Ehmedînejad serbarê got û bêj kirin tevî rayedarên mezin yên Sûriyayê û derbirîna piştevanî û hevalbendiya xwe li hember her terze gef, zext û êrişan ji aliyê Îsraîl û Rrojava ve hevdîtin bi Hizbulaha Libnanê û rêveberên girûpên terorîstî yên Felestînê (Hemas û Cehada Îslamî) pêk anî û piştgîriya xwe jî ji xebata gelê Felestînê bi dijî Îsraîl da eyan kirin. Hêjayî gotinê ye ku ev hevdîtinane Piştî vê hatine encam dan ku roja berê Wezîrê parastina Îsraîlê, **Şaûl Mufaz**, Îran û Sûriya bi dest hebûna rasterast di teqîna roja 19.01.2006'an li Tilavîvê de tawanbar kir û herweha Amerîka û Rojava ji ev hevdîtina rexne kirin û dan zanîn ku ev rejîmane, piştevaniya terorîst û girupên felestînî yên neyarê Prosesa aştî û aramiyê dikin.

Bi giştî em dikarin seredana Ehmedînejad bo Sûriyayê di van çend xalên girîng yên jêrîn de kurt bikin:

- Nûkirina piştevaniya Sûriyayê ji Progremên Etomî yên Îranê li dema hinartin bo Konseya Ewlekarî ya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî.
- Nûkirina hevalbendiya xwe bo rawestan li hember gef û zextên Rojava
- Nûkirina piştevaniya madî û menewiya xwe ji girûpên terorîstî yên dijî aştî û tenahiya deverê.
- Ji hemûyan girîngtir hêvîdar bûna Îranê ji piştevanî kirin û hevkarî û derb lêdana rêxistinên terorîstî bi Îsraîlê li dema êriş kirin bo ser navendên Etomî yên Îranê.

## Bersiva PDK Îranê bi nameya xwendekarên Îranî yên parêzerên aştî û mafên mirovan

**Hevalên hêja!**

Me nameya we rewşenbîr û xwendekaran ku rû ji partî û rêxistinên siyasî yên dijî Komara Îslamî ya Îranê û yek ji wan Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê kiribû, xwend. Hest bi berpirsiyarî kirin li hember welat û xelk û her wisan bîr û raya azadîxwazane û aştîxwazane ya we hêja û cihê rêzgirtinê ye. Em silavan ji we re dişînin û hewl û cehdên we ji bo pêkanîna yekîtî û hevgirtinê di navbera rêxistinên Îranî yên opozîsyona Komara Îslamî de bilind dinirxînin.

Hewce ye em bi bîr bînin ku PDK Îranê peywendiyeke dostane bi piraniya partî û rêxistinên opozîsyona Komara Îslamî re heye û hertim xebat kiriye ku wan rêxistinane ji hev nêzîk bike û heya vê qasê ku îmkan hebe eniyek ji wan hêzane pêk bihê ku bi awayekî berfireh gelek ji partî û rêxistinên azadîxwaz û demokrat di xwe de cih bide, heya niha jî li ser domadina vê xebatê berdewam e û tekezê dike. Ji ber ku li ser vê bawerê ye ku yek ji sedemên man û nehiloşîna rejîmê cudahî û ji hev dûr bûna hêzên opozîsyona rejîmê ye.

Bi raya PDK Îranê, pêkanîna yekîtî û hevgirtinê di navbera rêxistinên opozîsyona Îranî û xebata hevpar tenê ji bo armanca hiloşîna rejîma Komara Îslamî, nikare bibe sedema bidestveanîna armacên azadîxwazane û cihgir kirina demokrasiyê piştî hiloşîna rejîmê, karek ku di sala 1357'an ya Rojî(1979) de hate ceribandin û encama wê jî tenê cihgir bûna rejîmek dîktator û kevnarperwer li cihê rejîmeke ne demokratîk bû. Lewra her hevgirtinek divêt bi li berçavgirtina du bingehên girîng bihê avakirin, yekem bi merema xebata hevbeş ji bo hiloşandina Komara Îslamî û piştre bi armanca anîne ser kara rejîmeke demokratîk ku bikare bersivderê xwest û daxwazên demokratîk yên gelên Îranê be.

Li gor vê çendê ku welatê me Îran, welatek pir neteweyî ye, bi hev re jiyana van neteweyane ku pêkhateya nifûsa wê pêk tîne û bi mafên wekhev û misoger kirina mafên siyasî û neteweyî yên her yek ji wan û yekparçeyiya Îranê garantî dike. Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê sîstemekî demokratîk û federal jêhatî welatê me dizane û ji bo bidestveanîna wê jî xebatê dike û di vê derheqê de amade bûna xwe ji bo gotûbêj tevî gişt wan partî û aliyan radigihîne ku baweriyeke rast û tam bi demokrasî û misoger bûna mafê wekhev yê hemû neteweyên Îranê hene û her wiha amade ye ku di rêya pêkanîna yekîtiyeke wiha û her wisan li hevkirin li ser van bingehane ku armancên wê li jor qala wan hate kirin misoger bike û encama wê jî hatine ser kara rejîmeke demokratîk, li hember qanûnên pesendkirî yên navnetweyî li dor maf û azadiyên mirovî de sozdar be, zêdetir ji berê cehd û hewla xwe bide.

Em hêviya serkevtinê ji bo we tev rewşenbîr, azadbîr û azadîxwazan dixwazin.

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**

**09.10.1384**
**30.12.2005**

# Rewşa mafê mirovan di Komara Îslamî ya Îranê de

Wergeran ji Îngilîzî: **Şoriş Palanî**

Eva deqa biryarnameya Civata Giştî ya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî di rûniştina şêstem û komîteya sêyem e ku li ser Îranê hatiye pejirandin û rê ji bo zêrevanî kirin li ser hikûmeta Îranê ji aliyê Komîsyona mafên mirovan ya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî xweş dike.

Civata Giştî, ku di bin rênimayî ya pêrewa hundirîn ya Neteweyên Yekbûyî de, Carnameya Gerdûnî ya Mafên Mirovan, peymannameya navneteweyî ya mafên mirovan û pîvanên din yên navneteweyî ên mafên mirovan de ye. Tekezê li ser vê yekê dike ku hemû welatên endam naçar in erkê geşekirin û parastina mafên mirovan û azadiyên bingehîn bidomînin û ev erkên ku di peymannameyên navneteweyî de bi stûyê xwe girtine, bi encam bigehînin.

Em bi bîr tînin ku rejîma Komara Îslamî ya Îranê yek ji endamên peymannameya mafên siyasî û medenî, mafên aborî, civakî û çandî, peymannameya ji navbirina ferq û cudahiya nejadî û peymannameya mafên zarokan e. Bi mêze kirina biryarnameyên pêşîn di vê derheqê de, ku ya herî dawiyê biryarnameya 59/205 a 20’ê Desambera 2004’an û her weha biryarnameya Komîsyona Mafên Mirovan 17/2001 ya 20’ê Avrîla 2004’an e, bi baldan bi van ronkirinên hikûmeta Komara Îslamî ya Îranê li ser rêzgirtin ji mafê mirovan û bihêz kirina desthilata yasa di welat de:

1) Pêşwaziyê dike ji:

A) Rêdan û vekirina mekanîzma lêkolîneke bingehîn li ser mafên mirovan di Îranê de li Avrîla 2002’an de û dom kirina hevkariyê ji pêvajoya cehd û xebatên taybetî yên Komîsyona Mafê Mirovan li dema seredanên xwe ji bo Îranê de.

B) Seredana lêkolînevanê/a taybet yê a Komîsyona Mafên Mirovan ji bo Îranê li ser tepeser kirin û çewisandina jinan, sebeb û encamên wê ji 29’ê Janviyê hetanî 6’ê Fevriyeya 2005’an.

S) Seredana lêkolînvanê a taybetî yê a Komîsyona Mafê Mirovan bo Îranê li ser pirsgirêkên akincîbûn û avahî û xaniyan wekî parek ji mafên sirûştî yên jiyanê, ji 19’ê Jûiyê heta 30’ê Juiyeya 2005’an.

D) Pêşniyarek di Desmbera 2002’an de ji aliyê serokê dezgeha dadwerî ya Komara Îslamî ku tê de hatibû gotin ku dadmend dikarin li cihê cezaya kevirbaran kirinê, ji cezayên din mifahê werbigirin.

E) Daxuyaniya serokê dezgeha dadweriyê di Avrîla 2004’an de li ser qedexekirina îşkence û pejirandina yasaya taybet bi îşkencê di Parlemantoyê de ku paşan ji aliyê Konseya Parêzvanan ve di meha Maya 2004’an de hate pejirandin.

F) Bicihanîna erkên Komara Îslamî ya Îranê wekî endameke biryarnameya mafên zarokan li ser pêşkêş kirina rapora xwe bi komîteyê di Janviyeya 2005’an de.

G) Diyaloga Komara Îslamî ya Îranê û parek ji welatên li ser mafên mirovan, ku mixabin di van demên dawîn de beşek ji wan di demên destnîşankirî yên xwe de birêve neçûn.

H) Hevkarî tevî Rêxistinên Neteweyên Yekbûyî derheq xurt û




berfirehkirina progremên girêdayî bi mafên mirovan bi rêveberiya baş û hikûmeta yasa û qanûnê.

2) Nigeraniya xwe ya kûr dide xuya kirin ji:

A) Domandina sivikatî, gef lêkirin û sivikatî kirin bi berevankerên mafên mirovan, rêxistinên ne hikûmetî, cudabîrên siyasî û olî, reformxwazên siyasî, rojnamevan, Parlemantêr, xwendekar, Meleyên ayînî, akademîsyen û xwediyên malperên înternetî, herwiha ji rêya zevtkirina azadiya civîn û kombûnê, û derbirîna bîr û ramanan bi terzeke ne berheq, bikaranîna girtin û bi çav kirina bi zorê ya takekesan û endamên malbata wan, girêdana bê sebeb a rojnameyan û fîltêr kirina malperên întêrnetî, herwiha nebûna tu terze pîvanekî hewce bû hilbijartineke rewa û azad, tevî bêpar kirina hijmareke berçav ji berbijarên jin di helbijartinên Serok Komariya Juena 2005’an de bi terzekî zalimane.

B) Ne serkevtinên berdevam ji pabend nabûn bi merc û pîvanên navneteweyî derheq meşandina dadperweriyê, bi taybet nebûna pirosesên hewce yên yasayê, xwe parastin ji misoger kirina dadgehî kirina berheq û giştî, rênedan bi pêdeçûn û bêparkirina girtiyan ji mafê nebûna parêzer, bikaranîna qanûnên ewlekarî yên nîştimanî ji bo binpêkirina mafên mirovan, çavtirs kirin û sivikatî kirin bi parêzeran, bê rêz kirina standardên naskirî yên navneteweyî, di nava wan de yên ku ser bi kêmaniyên olî, neteweyî, yan jî cinsî û tixmî ne, fermî yan nafermî, bikaranîna hukmên dasepandî li girtîgehan û bê hurmetî kirin girtiyan, mifah wergirtina sîstematîk û dasepandî ji girtîgehên takekesî û dirêjden, dabîn nekirina çavedêrên saxlemiyê ji bo girtiyan û rênedan bi tu kanaleke têkiliyê di navbera girtiyan û malbatên wan de.

S) Domandin û mifah wergirtin ji îşkencê, tevgeriyan û riftarên bêrehmane û dijî mirovî, weke: şelaq, birîna endamên cendekê mirovan.

D) Domandina cîbicî kirine îdamê li hember raya giştî, îdama bi kom, ev îdamên ku berevajî qanûnên pejirandî yên navneteweyî ên pesend kirî birêve diçin û bi taybetî îdama ewên ku jiyê wan ji 18 saliyê kêmtir e ku ew jî berevajî wan qewl û sozane ye ku Komara Îslamî di benda 37’an ya biryarnameya mafên zarokan û herwiha berevajî benda 6’ê ya peymannameya cîhanî ya mafên medenî û siyasî daye û serbarê wê ku Komara Îslamî bi dawî anîna îdama nûciwanan ragihandiye.

E) Domandina tepeserkirin û ferq û cudahiyan dijî jin û keçan di yasa û kiryar de, serbarê hin pêşdeçûnên tesk yên yasayî û ret kirina konseya zêrevanî kirinê bo gav hilgirtin ji bo îşare pê kirin bi van cudahîdananên sîstematîk ku ret kirina pêşniyaza endamên hilbijartî yên Parlemanê ji aliyê konseya navhatî ji bo çûn di nava konvansiyona ji nav birina her terza cudahîdananekê bi dijî jinan.

F) Domandina ferq û cudahîdanan û binpêkirina mafê ewên ku ser bi kêmaniyên olî yan neteweyî ne, wekî Ereb, Kurd, Belûç, Cihû, Suniyan, xirabtir bûn û domandina ferq û cudahî û serkutkirina berçav ya Bihayiyan nemaze dest bi ser kirin û ragirtina bizor a wan di girtîgehan de, zevt kirina azadiyên olî û mafê li darxistina rê û resm û kar û barên giştî, kavil kirina cihên pîroz yên olî, rawestandina cehd û xebatên civakî, zanistî, herêmî û asteng afirandin ji bo dest gihîştin bi xwendina bilind, karkirin, bîme ... û bi taybetî tepeserkirina hovane ya vê dawiyê a Kurdan.

3) Daxwazê ji Komara Îslamî ya Îranê dike ku:

A) Rêzeke taybet ji mafê azadiya pêkanîna kom û civînan, raman û radebirînê û pişikdarî kirin di birêve

birina kar û barên giştî ku hevdem tevî wan qewl û sozên ku di peymannameya navneteweyî ya mafên medenî û siyasî de dane, misoger bike. Nemaze dawî bi sivikatî, tirs û êrîşkirin û dadgehî kirina cudabîrên siyasî û berevankerên mafên mirovan bîne û yên ku li ser bîr û ramanên siyasî bi naçarî hatine girtin, serbest bike.

B) Rêzeke zaf ji mafê şêwirmend û destpêragihîştina bi parêzer di pirosesa dadperweriya cinahî de, rewşa jêhat ji bo guhdan û pêdeçun di dadgeha xwedî jêhatî û bê alî de ku yasa têde hakim be, misoger bike. Dawî bi sivikatî kirin, tirsandin, gef û êşandina parêzeran û berevankar ên yasayê bîne û wekhevî li hember yasayê û pişgîriyê ji wekheviya qanûnî bi bê baldan bi her terze ferq û cudahiyekê ji bo hemû aliyekê, bi taybet endamên kêmaniyên olî, neteweyî, zimanî û kêmaniyên din, naskirî yan berevajî we.

S) Îşkence û bikaranîna riftarên dijî mirovî û cezadana weke birîna endamên leş û şelaq lêdanê di yasayê de bi kiryar ji nav bibe û dawî bi bêguneh nasandina wan kesane bîne ku mafên mirovan bin pê dikin.

D) Dest ji îdama li hember raya giştî û îdamên din ku di bêrêzî û li gor pîvanên naskirî yên navneteweyî de tên meşandin, hilgire û bi taybet îdama yên ku di dema encamdana tawanê de jiyê wan di bin 18 saliyê de bûye ku di vê dawiyê de ji aliyê Komîteya mafên zarokan li Janviyeya 2005'an li ser de nerazîbûn hatibû nîşan dan. Rêyê bo ji nav birina cezaya kevirbaranê û gav ji bo yasayî kirina vê bendê ku kevirbaranê bo hertim qedexe bike, hilgire.

E) Her terze ferq û cudahî, tund û tûjî dijî jin û keçan çi bi yasa û çi bi kiryar ji nav bibe û her wek Parlementoya hilbijartî pêşniyaz kiribû ku biçe nava konvansiyona ji nav birina her terze cudahî dananekê bi dijî jinan.

F) Her terze ferq û cudahîdananeke olî, neteweyî, zimanî û her cure binpêkirineke mafên mirovan bi dijî kêmaniyan, bi xasmanî Ereb, Kurd, Belûç, Mesîhî, Misilmanên Sunnî û Bihayiyan hilgire û van pirsane jî di zirûfeke jêhatî û bi pişikdariya wan kêmaniyan binin ber bas û serbarê vê yekê jî rêz û rumeteke zaf ji mafê azadiya bîr û ramanê, ol û bîr û bawera hemû take kesan bihê girtin û rapora raporterê taybetî yê Komîsyona Mafê Mirovan di sala 1996'an de li ser pirsa olî birêve bibe ku pêşniyaza wan rêyane dike ku Komara Îslamî ya Îranê divêt pêş xwe bigre ji bo çawaniya azad bûna civaka Bihayiyan.

4) Haydana kakila mekanîzma Komîsyona Mafê Mirovan di nava wan de, rapora taybetî li ser îdamên serpê, bikom û neqanûnî, rapora taybet li ser îşkence û cezayên dinê yên dijî mirovî yên bêrehmane û hov, rapora xasmanî li ser serxwebûna dadmend û parêzeran, rapora taybetî li ser azadiya olî û bîr û bawerê, rapora taybetî li ser pêşvebirin û parastina maf û azadiyên raman û derbirîna bîr û ra, nûnerê taybetî yê Sekreterê Giştî li ser rewşa parêzvanên mafên mirovan û koma kar li ser winda kirina bi zorî û nexwestî, dide ku ji serdan û çelengiyên xwe ji bo baştir kirina rewşa mafên mirovan di Komara Îslamî ya Îranê de bidin, herwisan bi micidî daxwaz ji Komara Îslamî ya Îranê dike ku hevkariyê tevî wan mekanîzmên taybetî bike û nîşan bide ku çawa pêşniyazên wan bi taybetî li seredanên wan komane di 12 mehên rabihurî li berçav girtine.

5) Biryarê dide ku di lêkolîn li ser rewşa mafê mirovan di Komara Îslamî ya Îranê de li rûniştina 6'an ya xwe di bin navê karnameya pirsa mafê mirovan li jêr ronahiya rapor û hevkariyên Komîsyona Mafê Mirov berdewam be.

# Xwe kuştina 150 jinên Kurd li Azerbaycana Rojava

Li gorî agehiyên daxuyaniya nû ya Rêxistina mafê mirovan li Kudistanê, 150 kes ji jinên Kurd li parêzgeha Azerbaycana Rojava dest bi xwe kuştin û xwe şewitandinê kirine. Ev serhejmariya balkêş tenê di van çend mehên borî de hatiye encamdan. Daxuyaniya RMMK'ê dide xuya kirin ku jinên han ji bo xûyakirina nerazîbûnê li hember tund û tûjiyên malbatî û civakî dest bi xwe kuştin û xwe şewitandinê kirine.

Komîteya jinan ya RMMK'ê nav û paşnav, temen û bervara ji dayîk bûnê, rewşa kar û xebitîn û malbatê, asta xwendin, rewşa zewac û nezewicînê û bervara xwe kuştina hemû wan jinên Kurd dayiye zanîn. Li gorî zanyariyên daxuyaniya navhatî navinca temenê wan jinên ku kiryara xwe kuştinê encam dane, di navbera 14-30 salî de bûne û piranî kêm xwende û li warê karî de tenê karên di nav malê de dikin û qasê %50 ji wan zewcîne.

Mixabîn em rojane berdewam nûçeyên xwe kuştina jinên Kurd di parêzgehên Îlam, Kirmaşan, Kurdistan û Azerbaycana Rojava(bajarên Kurd akincî yên Îranê) dibihîsin. Em weke Desteya Nivîskar ya Agirî kul û kesera xwe bona bihîstin û wergirtina nûçeyên wiha bi kul û elem yên xwe kuştin û xwe şewitandina jinên Kurd didin xûya kirin. Em bawer in zêde bûna zaf ya wan bûyerane bi awayekê vêzarî û nerazîbûna jinan ji sîstema mêr serdestiya heyî di civaka Kudistanê de dide nîşandan û rewşa nebaş, bêmafî û binpê kirina mafên wan yên herî sereke, tûnd û tûjiyên malbatî, fîzîkî, ruhî- rewanî û ... sedemên vê bûyera bi jan in.

# Wexera dawî ya Pêşmergeyekî kevnar yê PDK Îranê



Mixabin sibêdeya roja înê, 30'ê Befranbara 1384'ê Rojî, yek ji Pêşmergeyên kevnar yê Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê, bi navê **Mihemed Sipasî** xelkê bajarê Nudşeya Hewraman di bûyereke bi jan û dilêş ya tirumbêlê de canê xwe ji dest da.

Kekê Mihemed Sipasî di sala 1358'an de bi hest kirin bi çewisandina gelê xwe hate nav refên Pêşmerge yên PDK Îranê û di Hêza Şaho ya vê demê de hat cihdan(sazmandan). Sala 1363'ê Rojî di nexweşxaneya **Şoriş**'ê de erkê Pêşmergayetiyê birêve dibir û di sala 1365'an de vegeriya nava Hêza Şaho û heta sala 1367'an li wir têkoşîn û xebat dikir û piştre ji sala 1367'an re di naxweşxaneya 25'ê **Gelawêj**'ê dirêjî bi xebata xwe da.

Di navbera salên 1369 hetanî 1372'an li binkeya Peywendiyên Partiya Demokrat li bajarê Raniyê û Koyê ya Kurdistana Îraqê têkoşîna xwe domand.

Di salên 1372'an heta dema şehîd bûnê di Komîsiyona Malî û Komîteya Xedematê de dirêjî bi erk û wezîfên Pêşmergatiya xwe da.

Kekê Mihemed Sipasî li heyamê pitir ji 26 salên Pêşmergatiyê de ji ber fidakarî, dilsojî û baştir birêvebirina kar û baran du caran ji aliyê organên partiyê ve hate teşwîq kirin.

Em ji aliyê Desteya Nivîskarên Rojnameya Agirî ve behî û serexweşiya xwe pêşkêşî malbat û kes û karên Kekê Mihemed Sipasî û xelkê bajarê Nudşê û bi giştî devera Hewramanê dikin û xwe jî li xem, keser û kovanên wan de bi şirîk û pişikdar dizanîn.

**Ruha wî her şad û hêviyên wî misoger bin.**

# ŞAREZAYÎ

**ADAR JIYAN**
adarjiyan@mynet.com

Şarezayî, her çendî ku îro wekî hemdemî, aştî, aramî û hêmindariyê tê bilêvkirin jî ew, ji reseniya xwe bi dûr ketiye û tenê wekî têgîneke rojane di suxreya şer û lêkdanên tundrew de tê bikaranîn û xebitandin.

Kok û wateya peyvê ya têgînî xwe dispêre dem û domanên kevnar: Şarezabûn, di her dem û domanên borî de wekî liv û tevgereke pêşketî ya şarde û şareza hatiye zanîn û qebûlkirin. Belê îro rasterê girêdayî rewşa aborî (şêwe û şêwaza hilberînê û alav û amrazên wê) dirb û dirûv digire. Belê ev rêbaz ne pêkan e ku her car wekî pîvangeke neguherbar û misoger a erênî û sûdewar were dîtin û pejirandin. Lewre car heye rewşa aborî an jî dewlemendîbûna mirov (an jî civakê) dibe egera şer û şerûdiyên tundrew û hinceta pevçûnên lêkneker û dagîrker. Û li ser navê şarezahiyê, bi dagîrkirin û wêrankirina cih û warên ku şaristaniyên qedîm û kevnar dest pê kirine, diencime.

Îro wisa bûye ku rewşa jiyana her mirovî/ê li gorî şêwaza hilberîna wî/wê ya komelî dişêwe û dirûv digire. Ango her kes bi qasî hêz û teqeta xwe ya aborî dikare bijî, tevbigere û pêşve biçe. Û bi gelemperî jî ev yek tim û dayîm wekî şarezabûneke yekgirtî tê zanîn û binavkirin. Çendî ku ev nêrîn bi giranî wekî rastiyeke giştî were dîtin û pejirandin jî, kêmaniyeke veşartî di xwe de dihewîne. Lewre her pêçveçûn û nûbûn her gav nayê wateya şarezabûn û şarmendiya civakê. Şarezabûn bi serê xwe têgîneke dîrokî, civakî û komelî ya herî girîng û manîdar e. Ji bo wê, divê ku ev têgih bi awayakî berfireh û zanayane were dahûrandin, nirxandin û ravekirin.

Mixabin gelek têgih li gorî bîrdoz û ramyariya civakên çîndar û her wiha ji hêla hêz û kesên serwer û desthilatdar ve têne navandin, ravekirin û belavkirin. Ji bo wê pirê caran peyv, gotin û têgih ji wateya xwe ya rastîn bi dûr dikevin û li wateyeke bêwate û beropaş dadigerin. Bi ya min şarezabûn jî yek ji van têgînan e ku ji wateya xwe pir bi dûr ketiye. Îro em dinihêrin ku dûgel(dewlet) û xuhermendên(hikûmetên) desthilatdar ên ku çerxa pergala dinê li gorî berejewendiyên wan dizivire, ev têgih û bêjeyên zanyarî lewitandine û wateya wan bervajî kirine. Ew, her tiştî li gorî dilê



xwe rave û şîrove dikin û li gorî daxwaza xwe bi gel û civakên dinê didin pejirandin. Dîsa mixabin kesên ku navê rewşenbîrî, ronakbîrî û zanyariyê bi ser xwe xistine jî bi dêla wan diçin avê û van têgihên watedar xetiş dikin û diçilvirînin.

Carekê şarezabûn, livdariya ku mirov ji bizav û tevgerên hoveber ên lewirî reha dike û digihîne radeya mirovbûnê. Şarezabûn, azadkirin, rehakirin û şardekirin tevê mirovahiyê ya ji şer û pevçûnên paşverû, ji lêdan û lêkdanên hoveber, ji dagîrkirin û wêrankirinên kevneperest e. Nexwe îro mirovahî di nav van neyîniyên hemdem û rojane de, bi hovîtî û kirêtiyên herî erjeng û xeternak re rû bir û maye. Ma mirov dikare van neyîniyên îroyîn wekî şaristaniya dinê an jî şarezabûna mirovahiyê bi nav bike? Na. Çimkî ev yek ji şarezabûn û şaristaniyê bêtir stembarî û zilûmat e.

Bêguman dahênandina alav û amrazên teknolojiyê, pêşketina perwerdehî û hîndekariya mirov, guncandin û hêsandina azîne û rêbazên zanînê yên ji bo jiyana rojane, pêkanîna rêkeftin û ragihandina navbera mirovan û hwd… nîşaneyên şaristaniyê ne. Belê mixabin ev yek tu car bi mebest û hinceta ku hemû mirovên dinê(mirovahî) jê sûd û fêdeyê wergirin pêk nehatiye. Heçku armanca û qesta sereke ne ji bo aramiya dinê û lihevhatina mirovahiyê ye. Hincet û niyet ji aştî û azadiyê bêtir dagîrkirin, kuştin, talankirin û wêrankirina dinê û felişandina xwezayê ye. Heke car caran bi nîvdevî behsa şarezabûna mirov an jî şaristaniya dinê ya gerdûnî were kirin jî, tenê ev yek ji bo asûdeya çend kes û hêzên ku xwe wekî qeyser û serwerên dinê dihesibînin, tê kirin. Bi rastî bi vî awayî ne şaristaniya dinê bi dest dikeve û ne jî şarezabûna mirov pêk tê.

Şarezabûna rastîn aştî, azadî, aramî û şardekirina mirov û ahengdariya wî/wê ya bi xwezayê re ye. Belê mixabin em dinihêrin ku li ser rûyê dinê hê jî tu heyîn û heyberên ku bikaribin bi qasî mirov xisaran bibe, nin in. Ji bo wê mirov dikare bibêje hêj şarezabûneke giştî dûrî mirovahiyê û mirovahî bi xwe jî dûrî şaristaniyeke gerdûnî ye.

Kaniya Helbestan

## GAZIN

Latîf Epozdemir

Tarîtî çû şev bû sibe
Ji pişderê were der,
Roj li esman bendewar e
Êdî hiv xwe nade ser.

Çavên reş gerdena bi xal,
Di biriqin bin rojê
Bisk honayî bûne du mal
Keziyê dirêj ta bejnê.

Xortê ciwan xwe parastin
Ji xetera evînê
Her yek ji wan xwîn alastin
Ji kaniya birînê.

Karwanê derd û kula me
Bar dikşînin pişt û dil
Xizmet ji bo wê ola me
Nayê xwarê nîr ji mil.

Hozan ji dest borand jînê
Dil û cerg lê bûne nar
Kal bû li benda evînê
Ew ji ya xwe nayê xwar.

## KARWAN

Hat karwanê jiyanê
Li meydanê bû cîwar
Kuta bû hepsa zîndanê
Girtî bûne bextiyar.

Kar di zikê xezalan
Di pên rojên azadê
Rê li pêşiya karwanan
Ji do çêtir amade.

Zivistan tim reşî bû
Me nedî rojek bi şeng
Xewn û xeyal betal bûn
bi şev bi roj dil ma teng.

Derkeve roja zelal
Bide roniyek zêrîn
Rabe tu keça delal
Ku em bêjin aferîn.

Ey serdarê azaran
Bes li me bike êza
Neyne kêfa neyaran
Cuda neke bê riza

# Pîremêr

***Daphe du Maurier***

*[Cara yekê hatiye belavkirin: 1973, ji aliyê Lewis Jones ve hatiye asankirin. Ta sala 1993ê 17 caran hatiye çapkirin]*

Wergerandin ji Îngilîzî: **Cankurd**

Çi demê ew cara yekê hatibû vir? Nayê bîra min. Kesek nizane. Pîremêr berê li vir bû, gava ez gihame vir. Û ev jî berî çend salan bû.

Ev ciyekî bedew e. Xasma zire *(behir)* û gol. Dibe ku ew hatiye vir, da bireve -*wek min* - reva ji ber xelkê û bajaran.

Hetanî di destpêkê de jî, ez hizirîm "***Pîremêr ji xelkê heznake***." Ew li vir dijiya, li ber golê, û ewa li gel wî bû. Ciyekî wan ê nedîtî hebû. Ba û baran dihatin, lê ne xema wan bû.

Kesekî zevîkar gote min:" **Ji pîremêr ve nêzîk mebe. Eger ew te nenase, ew ji te hez nake**."

Wilo ez bi hajêkirin bervê çûm, û ez bi pîremêr re nepeyivîm. Ji xwe min bi zimanê wî jî nedizanî.

Tê bîra min cara yekemîn min ew dîtiye. Ew li keviya golê bû. Ez li aliyê dî bûm, li ber zireyê. Wî di ser avê re dinêrî. Ez wilo pêhiş bûm, ku pêwîst bû tew ez ne li wir bama. Min xwe di paş hormanekê de veşart. Paş min bi dûrbîna xwe li wî temaşe kir.

Ew kesekî qanat ê gir bû û hêzdar bû. Çi bi hêz û zor bû! Seriyekî xweşik: Wî wek şahekî rakiribû. Erê – wek şahekî. Qey xûna şahekî rastîn di govdeyê wî de digeriya? Xwîna malbatek şahanî ya kevnar? Hovbaz, xwînek germ. Ma wê *(xûnê)* pir caran ew sergerm dikir? Ma bo vê yekê ew buve "*xeter*" bû?

Min tenê ew bi dûrbînê berçav dikir. Ma wî dizanî, ku ez li wir im?

Gava wî bi paş ve nêriya, min dîsa xwe xiste paş hormanê. Ma wî ez dîtim?

Diyar e ez berçav nekirim. Ew nermnerm bi dûr ket, vegeriya çû mala xwe û ba jina xwe.

Min ewa di roja yekemîn de nedîtibû, lê min ewana paşê bi hev re dîtin. Bi hev re hatibûn zireyê û hinek masî girtibûn. Ewan vedigeriyan golê gava min ewana dîtin. Ew di pêşiyê de bû, bêguman. Ewa jî *(xanima wî)* hêdî hêdî û nazdar. Ne wek wî asê bû.

Ez li ser zinaran rûniştim û min li wan temaşe kir. "*Dibe ku pîremêr dixwaze raweste û ji wê bixwaze, ku ew here mal*." Ez wilo hizirîm. " Dibe jî ew dakeve û ber bi min bê. Çi niha? Rast ez nizanim. Ezê rabim ser xwe û berken bibim. Ezê biramînim, û ezê bibêjim:"***Beyanî baş***" û biçim. Ez bawer nakim ewê tiştekî bike. Ewê bi çavên nedît û zirav li min temaşe bike, lê ewê min ranewestîne."

Paş wê yekê, ez her li xarê, li ser qûmê an li ser zinaran bûm.

Zivistan û havînê, ewan jîna xwe ya nenas û asan dijiyan. Carina masî di golê de digirin û carina di zireyê de. Carina ewan diçûn bajarê biçûk ê li ber zireyê û li gemîkan temaşe dikirin.

Tiştek diyar bû- wî ji wê hez dikir û wê jî ji wî hez dikir.

Wî carina ewa li mal dihêşt û dûr diçû bo masiyan bigire. Gava her car êvar dibû, ewa dadiket zireyê. Wê dikarî wî ji dûr ve di rê de bibîne. Ew rasterast ber bi wê dihat û hevdu maç dikirin. Bo vê yekê min ji wî hez kir.

Tu dipirsî, "***malbata wan hebû?***." Ha. Erê. Divê ez ji te re hewaldim li ser tiştekî nebaş, ku qewimî ye û kesek ji min pê ve pê nizane. Dibe ku bûyerek ji ber xwe bû. Sedased ez nizanim.

Erê, malbata wî hebû – sê dot û kurekî. Ewan tev li ciyê berê, li ber golê dijiyan. Min bêtir ji dota ciwantir hez dikir. Ew tenê tiştekî biçûk bû. Min navek dayê – **Tiny**. Di sibeyek xweş de, ew dadiket golê di pêşiya yên dî de. Ew xwînxweş û şirîn bû.

Min navek da kur jî – **Boy**. Ew ji gişan mestir bû, lê bi rast bêhiş bû. Tiştek rast û dirist nedikir û ne wek bavê xwe yê jîr bû. Carina keçik bi tenê dilîstin, lê **Boy** na. Ew li mal dima, li ba dayîka xwe, ew rast wek kurikekî bû.

Min ji xwe re kiribû kar, ku ez hêzingan li ber golê bicivînim, û min li wan temaşe dikir. Carina ewan giş bi hev re diçûn nav zireyê bo masîvaniyê. Pîremêr bêguman her berpirs bû û Tiny harîkariya wî dikir. Lê belê Boy- hêdîka, **Boy**ê bêhiş – her li dawiyê bû.

Dem derbas bû û biçûk mezin bûn, bi zûkî Boy ji pîremêr girtir bû. Hema ox, ciyawaz! Ne hêza bavê wî li ser hebû û ne jî jîrbûna wî.

Wek encam, ez hizirîm ku pîremêr ji ber ve şerm dikir. Boy wilo baş li mal jî kar nedikir. Ez vê baş dizanim. Ew wilo bêhiş bû ku nedikarî asantir ji keçikan masiyan bigire. Heger dayika wî li wir ba, ew tenê li tenişta wî dima.

Pîremêr bi wê ne dilşad bû. Min dikarî ev bidîta. Ew xeyidî bû ji ber ku Boy wilo girs û bêhiş bû. Pir xeyidî bû.

Dawî jî ew bûyer pêkhat.

Rojekê di dawiya payîzê de bû. Dema min hewna dîtine, min hinek xwarin li bajêrkê dikirrî. Pîremêr, jina wî, her sê keç û Boy. Ewan tev ber **Pont**ê hildikişîn – avpijka ku av ji wê tê xwarê û dadikeve diçe zireyê. Li wir li Pontê tenê çend mal hene û zevîdariyek û dêrek jî di nêz wir de ye.

Famîle "*malbat*" taze û pak dixuya. Min got, ku dibe ewan diçin serîlêdana dostina. Min carek dî ewan nedîtin, wa paşnîvroja xweşika Şemiyê.

Roja dî, bayekî tund di ser golê re bi ser me de hat: Bahozek bi xeyd ji rojhilat ve. Ez di mal de mam û ez bi carekê derneketim. Ez heyirîm, ku çawa pîremêr bi malbata xwe ve hîn li Pontê bi dostên xwe re maye.

Sêşem bû, dema bahoz teva bûye û ez dîsa ber bi zireyê daketim. Zêt û parçeyên textên şikestî li her derekê, li ser qûmê belav bûbûn. Hergav wilo ye paş ku bahoz ji aliyê rojhilat ve hiltê. Min di ber golê re ber bi ciyê pîremêr ve nêriya. Ew li wir bû, ewa "*jina wî*" jî bi wî re bû, li keviya golê. Lê min nedikarî ciwanan bibînim.

Ez hizirîm, ku tiştekî ne dirist heye, û min li mayiyê malbatê çavkir "*întîzar kir*". Ew hîç nehat. Ez di dora golê re çûm aliyê dî û min dîsa ji wir da bi dûrbîna xwe nêriya. Ewan tew ne li wir bûn. Pîremêr di wan derana re digeriya û jina wî xwe da bû ber royê. Ewên dî li ku ne? Ma di bahozê de bûyerek bi seriyê wan hat? Na..Eger pevketinek çêbû ba, wê kesekî bidîta. Ewan hîn li Pontê, li gel dostan in. Ewan çûbûn tatîlê, an jî dûr çûbûn li kar digerin.

Ez xemgîn bûm.

Min carek dî keçik nedîtin. Hîç ez hizirîm, pîremêr ewan giş derkirine. Reş dixuya, lê dibe jî bo wan wilo çêtir bû.

Bêhişiya Boy têra vegera wî dikir. Paş sê hefteyan, ez di ber kaniyê re, di nav daran re diborîm, di navbera min û ciyê pîremêr lê rêyek dirêj hebû, û yê pêşîn, ku min dîtiye, Boy bû.

Wî tiştek ne dikir. Ew tenê li wir, li ber avê rawestiya bû û wilo bêhiş dinêriyê. Wî di ser golê re dinêriyê, ber bi pîremêr, û ew tirsiya bû. Min xwast ku bibêjim:"***Çi heye***?." lê ez tenê li wir rawestiyam, wek Boy.

Paşê pîremêr seriyê xwe livand û boy dît. Ew wek bayê bi keviya golê de firiya. Ber bi Boy lezkir û ezê hîç ji bîr nekim. Ew çavsorbûyî dixuya. Ew seriyê hêja niha xeyidî bû, buve bûbû, û ew diqêriya.

Boy li ciyekî geriya, ku xwe veşêre, tenê geyayê bilind li keviya golê hebû. Ew ewqas bêhiş bû ku çû nav wir. Ji wî ye ku di wir de tişt pê nayê. Boy gir bû wek pîremêr, lê ew tirsonek bû, nedikanî şer bike. Min dizanî. Wî tew nedikanî.

Ez tirsiya bûm. Min biryar da, ku pêwîste ez pîremêr rawestînim, lê

belê ez ne mêrekî wêrek im. Ma dil di sîngê min de hebû? Lê ew ji nişka ve rawestiya. Min bihîst ku ew tiştekî bi xeyd dibêje. Tiştên nebaş. Paşê ew jê qêriya û bi paş ve zivirî.

Ez rawestiyam, lê tiştek nebû. Gava bû tarî ez çûm mal.

Roja dî, ez dîsa daketim çûm ber golê. Min bi xwe re çoyekî mezin bir ku wêrekiyê bide min.

Û Boy li wir bû, dîsa di teniştа dayika xwe de. Ez xweşiyar bûm.

Roj derbas bûn û Boy nêzîk dayika xwe rawestiya bû. Pîremêr ne wek berê û ne dilşad dixuya, êdî bi tenê xwe li ber zireyê dinişt û di ser avê re dûr dinêrî. Min ji wê yekê hez nekir. Niha hemû tişt bo wan hatiye guhartin. Ew tenha bû û jina wî li gel Boy bi serê xwe radiwestiyan. Êdî tirsê ez girtim. Tiştekî nedirist bûye. Tiştek wê bibe.

Bi şev baranek giran lêkir û roja dî rojek xulîrengî û sar bû. Çile "*Dêsember*" di ser golê re wek ewirekî hatibû rêxistin. Di paş nîvroya zirav de, ro wek pereyekî zer di avê de dixuya.

Min dît ku pîremêr û jina wî li nêzîka ciyê xwe bûn, wan bi aliyê min de nêriyan, lê tiştek negotin. Boy ne li wir bû û ew ne li ber avê jî bû. Ez di ber keviya rastê yê golê re çûm. Dûrbîna min jî bi min re bû, lê min nekanî Boy bibînim.

Paşê min ew dît û di ber kenarê re ez ber bi wî ve beziyam. Ew di nav geyayê bilind de dirêj bûbû.

Ew mirî bû.

Birînek kûr li govdeyê wî hebû. Xwîna zuwa li ser pişta wî hebû. Ew tevahiya şevê li wir dirêjkirî mabû û laşê wî ji baranê şil bûbû.

Dibe, tu bihizirî, ku ez bêhişim, lê min dest bi girî kir. Min bi aliyê pîremêr ve qêrî kir,"**Te ew kuşt, te ew kuşt**!." Wî bersiv neda. Xwe tew nelivand. Ew li wir tev jina rawestiya bû û li min temaşe dikir.

Ez bi şûn ve çûm û min tevşûyek anî, û min gorek ji Boy re kola, di nav geyayê hêgin de li ber avê. Gava min teva kir, min di nav golê re li pîremêr nêriya.

….û min çi dît?

Wî seriyê xwe yê mezin ber bi wê kir, û gihand devê wê. Wê jî seriyê xwe ber bi wî kir, û ramûsand. Ewan dîsa bi hev re bûn. Azad bûn. Bi hev re derketin nîvê golê, û ji nişka ve pîremêr ji nav avê bi ezmên de hilbû, û ewa jî bi pey wî ket. Min temaşe kir çawa wan herdu firindên sipî û mezin ji nav zireyê difirin. Ewan rast ber bi royê ve firiyan, û min tiştekî ji wê yekê xweşiktir di teviya jîna xwe de nedîtibû.

Herdu qaz li wir difirîn, bi tenê, di zivistanê de.

# Duyê Rêbendan

***Bi boneya 60'mîn salvegera avabûna Komara Kurdistanê hatiye hûnandin.***

**Osman RAJANÎ**

Evro dîsan cejnane ye Kurdo, cejna we pîroz be
Kurdistanê tu dilşad be, bi te re me eva soz be
Cejna me Kurdan hat dîsan, pêkve tîlî liyan lê din
Ma bindestî bese êdî, heta kengê eva doz be

Rêbendan meha sirê ya, bo me Kurdan gelek germe
Keç û xurt dîlanan bigrin, befir bibare li ser me
Bizanin duyê Rêbendan e, bîranîna Pêşewa ye
Nebin xidok, nebin xembar, lê giryan bo me zor şerme

Dîsan hat duyê Rêbendanê, roja piçyana tim bendan
Neman dergehên hişk û req, borîn rojên xem û derdan
Qazî Mihemed li Çar Çira, di gel komek bab û bira
Got ku em Kurd in, serbest in, neman hepsên tarê û zîndan

Çaxê ku duyê Rêbendan tê, şadî dikeve her çar kinar
Bilbil dixwîne ser çiyan, zivistan me bûye bihar
Duyê Rêbendanê ku tê, şad dibe dilê hemûyan
Bo Kurdistana rengîne, kur û keç dibin evîndar

# Evîn

serbest_urmiye@hotmail.com

*Ji*......
Min nagerî
*Dest*...
Ji dil bernadî
Li xewnê şevan
Sihara sibêdeyan
Li xerîbistanê jî
Herimandiye
*Te*..................
Li min jiyan
Evîna bê xwedî
Lorîka dergûşa reş
Wejiya firîçka xwînê
*Tu*......................
Ji çi malbatêyî
Diya te kê ye?!
Bavê te kê?!
*Qey*..................
Tu li goristanê jî dê tevî min bî
*Dest*.......
Berde ji min
*Dil*.........
Vêzar e ji te
Evîna derewîn
*Tu*.........
Ne ax û jiyanî
*Ku*..........
Bimrim li ser te ez



agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî
Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/kurmanci. php

Navnîşana derveyî welat: AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE
E - Mail:
rojnama_agiri@yahoo.com
agiri2003@hotmail.com

# Yekîtiya Ciwanên Demokrat a Kurdistana Îranê bû endamê Yekîtiya Navneteweyî a Ciwanên Sosyalîst

Yekîtiya Ciwanên Demokrat ya Kurdistana Îranê ji aliyê 27'mîn kongireya Ciwanên Sosyalîst ku di rojên 12-15'ê Janviya sala 2006'an de li welatê Danmarkayê de hate lidarxistin,, wek endamê zêrevan yê vê rêxistina mezin hate wergirtin.




Hilbijartina YCDK Îranê di vê kongireyê de gavek bihagiran bo nasandina doza Kurd bi ciwanên cîhanê û her wisa ji bo baldana wan bo piştevanî kirin ji xebata netewî -demokratîk ya gelê Kurd di Kurdistana Îranê de ye. Bi berçavgirtina giraniya Yekîtiya Navnetewî ya Ciwanên Sosyalîst di asta cîhanê de, wergirtina YCDK Îranê di vê saziya navnetewî de derfeteke giring e bo Ciwanên Kurd ku berheq bûna xebata gelê Kurd bi tevahiya gelên cîhanê bidin nasandin û wan ji siyaset û kiryarên dijî mirovane yên rejîma Komara Îslamî ya Îranê derheq gelê Kurd haydar bikin.

# Serhildana nexweşiya Anfulenzaya Balindan li Kurdistana Îranê



Li gor nûçeyan, nesaxiya Anfulenzaya (şewba) Balindan(çûkan) ku heya niha li Turkiyê canê çend kesan girtiye, bajar û gundên parêzgeha Azerbaycana Rojava li Kurdistana Îranê, bi xasmanî bajarên Mehabad û Nexedê bi xwe ve girtiye. Hêjayî gotinê ye ku ev nexweşiya di roja înê 23.10.1384(13.01.2006)'an de hatiye dîtin. Heya niha tenê zarokekê li bajarê Nexedê seba vê yekê jiyana xwe ji dest daye.

## Komara Îslamî li hember destpêbûna nexweşiyê xwe bêdeng dike

Ew rewşa di demekê de ye ku rejîmê bangewaza nebûna vê nesaxiyê û tûş nebûna tu kesê pêve dike. Lê heya niha li gundên Mehabadê de wek Xur Xurê, Qeredax û ... bûye sebeba kuştina hezaran Balindên wek: Eleşîş, Qaz, Mirîşk û wd ... Serbarê vê çendê jî rejîmê tu gaveke hewce ji bo pêşîgirtin ji vê nexweşiyê ne avêtî ye. Bo mînak ev mirîşkên ku dimirin li cihê vê çendê ku çal bikin yan bişewitînin, li derdoran tên avêtin.

# Lidarxistina civîneke li ser dirûşma stiratêjîk ya PDK Îranê li bajarê Helsinkî a Fînlandayê



Li gorî rapora Komîteya Helsinkî ya PDK Îranê li welatê Fînlanda, roja 2'yê Rêbendanê, hevberî 22.01.2006'an, bi amadebûna birêz Ebdulriza Kerîmî, nûnerê PDK Îranê bo têkiliyên Opozîsyona Îranê, Komîteya PDK Îranê li Helsinkî, civînek ji bo bas û gotûbêj li ser dirûşma stiratêjîk ya PDK Îranê, **bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd, di çarçoveya Îranek demokratîk û Federal de** pêk anî.

Civîn bi sirûda neteweyî ya **Ey Reqîb** dest pê kir. Piştre rêzdar Ebdulriza Kerîmî, tevî amajekirin bi pêkhateya pir neteweyî, entîkî û olî ya Îranê, merca cîgirkirina demokrasiyê û parvekirina desthilatê di navbera gelên pêkhêner yên Îranê, Federalîzm wekî garantiyek ji bo hevgirtina Îranê û ji hev belav nebûnê zanî. Kekê Ebdulriza her wisan li dor ceribîna welatên pêşverû yên cîhanê, li ser bingeha demokrasî, parvekirina desthilatê û pêkanîna bingehên civaka demokratîk, got: " sirûşta pir neteweyî bûna civaka Îranê, rewş û pêvajoya herî jêhatî ye ji bo pêkanîna navendên demokratîk, ji bo kêmkirina desthilata navendê û hevgirtina dilxwaz".

Beşa duyem ya civînê ji bo bas û gengeşe li ser mijarê hatibû terxan kirin ku beşdarên civînê bi awayekî çeleng di basan de pişikdarî kirin.

Di vê civînê de hejmarek ji endam, alîgir û çalakên warê medenî, rewşenbîr û her wiha hejmarek ji Îranî yên Azerî û Fars ziman jî beşdar bûn.